Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 26
31'ê Oct 2005
Buha: 150 Tûmen



Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Cejna Remezanê ji we pîoz be

Seba hatina cejna pîroz ya Remezanê, em pîrozbahiyên xwe yên germ û gur pêşkêşî hemû Misilmanên cîhanê û Kurdistanê dikin.

Em hêvîdarin ku cejnên tê di bin siya azadî, aştî û serkevtinê bihê pîroz kirin.

**Desteya Nivîskar ya Agirî**

# ÎRAN MEZINTIRÎN GIRTÎGEHA ROJNAMEVANAN

## Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor Îran wekî xirabtirîn welat li Rojhilata Navîn di warê azadiya çapemeniyê da zanîn

**R. Agirî**-Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor(RSF) rapora xwe ya sala 2005'an, derheq rewşa azadiya çapemeniyê di cîhanê de weşand. Vê Rêxistinê îsal jî Îran wekî xirabtirîn welat seba binpêkirina azadiya çapemeniyê di Rojhilata Navîn de da nasandin. Di lîsteya azadiya çapemeniyê ya îsal de, navê 167 welatan hatiye, rejîma paşverû û kevneperest a Komara Îslamî rêza 164'ê digrin.

Li gorî rapora sala 2005'an ya Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor, Koreya Bakûr careke din di rêza 167'ê de cî girt, ev welate wekî welatê herî bi xeter yê cîhanê di warê azadiya çapemeniyê de hate îlan kirin, welatê Îrîtereyê li Afrîqayê di rêza 166'ê û welatê Turkmenistan di rêza 165'ê û paş Îranê ji ber rewşa xirab ya azadiya çapemeniyê cî digre. Rapor dide zanîn ku Îran mezintirîn gitîgeha rojnamevanan di herêmê de ye.

Rapor sala 2005'an ya Nûçegihanên Bêsînor, welatên: Danmark, Fînlanda, Îsland, Holanda, Norwêj û Swîs bi awayekî hevpar wekî baştirîn welatên xwediyê çapemeniya azad da zanîn.

Di parek ji rapora xwe de, ev rêxistine derheq azadiya çapemeniyê dinivîse ku di Rojhilata Navîn de li welatên mîna Îran, Îraq, Erebistana Seûdî û Sûriyê, rojnamevan demên pir dijwar derbas dikin û çewisandina ji aliyê hikûmetê ve û herwiha girûpên çekdar nahêlin ku çapemenî bi azadî pêk bihên û çalakiyan bimeşînin.




Hemû salê lîsteya rewşa azadiya çapemeniyê ya welatên cîhanê ji aliyê Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor tê amade kirin. Buroya vê rêxistina navneteweyî li Parîsê, Serbajarê Fransayê ye.

# Serdana Birêz Mesûd Barzanî ji Koşka Sipî bi kincên Kurdî



Serokê Herêma Kurdistanê, birêz Mesûd Barzanî bi kincên Kurdî yên pîroz di Koşka Sipî bû mêvanê Serok Komarê Amerîkayê....

**Rûpla 4**

## Beşdariya Şandeka PDK Îranê di rê û resma vegerandina termên hejmarek ji Barzaniyên Enfalkirî de

Şandeka PDK Îranê ku ji rêzdaran Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Polîtbîroyê û Kemal Kerîmî, endamê Komîteya Navendî pêk hatibû, roja duşemî 17.10.2005'an, di rê û resma vegerandina termên komek ji wan 8000 Barzaniyan ku bi destê xedr û tawana rejîma dîktator ya Bees di sala 1983'an de hatibûn Enfal kirin, beşdarî kirin û hevxemiya PDK Îranê ji malbatên wan şehîdên serbilind û Mekteba Siyasî ya PDK û Parlamentoya Kurdistanê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê dan xuya kirin.

Hêjayî gotinê ye ku şanda PDK Îranê di navbera vê rê û resmê de ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Hewlêrê pêk anîbû, bi dehan kes ji kesayetiyên



welatparêz re hevdîtin pêk anîn.




## Serdana şandeka hevbeş ya PSK'ê û PDK Bakur ji binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê

R. 4




### Stratêjiyên Nejadperestane û nerast

Li pişta çêkirina Avbenda Geliyê Bendê armancên gemar û nejadperestane hene, ne armancên xizmetkirinê



(R. 2)

### Demokrasî, biha û piratîka wê

Dadperweriya siyasî li ser bingeha ***rêzgirtin ji kesayetiya takekes*** hatiye damezrandin



(R. 3)

### Xortanî û kaltî

Wergera ji Rûsî

Têmûrê Xelîl



(R. 9)

### HÊVÎDARÎ

Hêvî, hestyarî û pejnkariya ku jiyanê bi mirov dide hezkirin



(R. 10)

# Stratêjiyên Nejadperestane û nerast

**Mistefa ÇOLÎ**

Piştî şerê yekem yê cîhanî siyasetên diyar yên Îngilîstanê, bihêzkirina dewletên navendî yên welatên bin desthilata wan û baykot kirina wan neteweyan bû ku di çarçoveya wê desthilata siyasî a diyarîkirî de dijiyan.

Bi taybetî eva ku cemsereke din hatibû nava bazneya siyasî ya herêmê û gef ji qazanc û berjewendiyên wê take hêza heta wê demê dikir, di rewş û zirûfeke wiha de bû ku Komara (Fîrqeya) Demokrat ya Azerbaycanê û Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê hevdem li gel ramana serdem (dewlet û nertewe) hatibûne nava hevkêşeyên siyasî yên Îranê û deverê, bi taybet ku zirûfeke jêhatî di vê para coxrafiyayî de hatibû holê, bi wê wateyê ku bi hatina hêzên hevalbend bo welatê Îranê, desthilata navendî li wir jar û lawaz bûbû, ew jî ji ber vê çendê bû ku ref girtina hêzên din li deverê xuyatir bû, lê di heyameke kurt a dîrokê de tevî sivikbûna giraniyê û ji nav çûna Faşîzmê li ser cîhanê, hêzên hevalbend Îran bi cî hêlan û Yekîtiya Soviyetê jî piştî lihevkirin tevî Qewam paşde kişiya. Vê çendê jî derfet bo ji nav birina du desthilatên sava û kêm temen yên Komara Kurdistanê û Fîrqeya Demokrat ya Azerbaycanê pêk anî ku cih û navenda hevgirtina van du desthilatên herêmî jî bajarê **Urmiyê** bû.

Baykot kirina van du desthilatên herêmî jî li ser bingeha ramana **dewlet û netewe**, ji dîtingeha bi cih anîna daxwazên neteweyî, dûmahiya kar nebû. Ji ber ku dikare weke ji hev veqetiyaneke demî jê bihê mêze kirin ku bi pêşhatina derfeteke kêrhatî û di cih û demekî bicî de careke din serî hilbide. Em dikarin berjeng û hêmaya vê serhildanê jî piştî zêdetir ji nîv sedsalê de, di **Kongreya Neteweyên Îrana Federal** de bibînin ku di 20.02.2005'an li Londonê dest bi xebatê kir.

Lê ya ku niha cihê baldanê ye û wekî pasavanîn ji bo rewşa niha, bas ji derbasbûyiya tiştekê tê kirin ku nema ye, lê giringiya vê fenomen û derkewtê li wir tê his kirin ku ew rêzoka kevn, bê rawestiyan şemendefira cudahiyê pal daye û heya niha jî hatiye. Ew fakterên ku dikarin rola xwe bilîzin ne tenê her mane, belkî bihêztir in jî.

**1:** Her du neteweyên **Kurd** û **Azerî** di hilkefta xwe ya coxrafî de her mîna caran mane û di warê nifûsê de di vî heyamî de zor zêdetir û li dor mafên xwe jî zor zanetir jî bûne.

**2:** Ew perwerdeya exlaqî ya berê ku siyaseta **ajawê pêk bîne û hikûmetê bike** ji bo parastina navendparêziyê hewce bû, niha ji caran bihêztir e. Lê aliyeke din ya vê pirsê sepandina cudahiya olî û ayînî ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê û mifah wergirtin ji wê delîveyê di serdemê şoreşa gelên Îranê de her wekî ku em dibînin dewsên malwêranker yên mîratgirê şoreşê di civakeke giştî de bi fermana cîhada Îmam hêza xwe berdane canê neteweya Kurd.

Ev rastiya tal ku neteweya Kurd û Azerî ser bi mesebên cuda yên Ola Îslamê ne, di vî serdemî de karî bibe sedemek din ji bo mezin kirin û berfireh kirina vê valahiyê di navbera van du netewan de. Nahê înkar kirin ku pêvajoya bûyeran û lênihêrîna çawaniya peywendiya wan du netewane ji hev gihîştina Sad Çîkof şûn de û heya niha jî di xizmeta desthilat û tevî berjewendiyên desthilata navendî de hevterîb bûne.

Rastiyek ku niha em gelên Îranê wekî desthilat pê re berengar in, rejîmeke totalîter û sedsala navîn e ku xelk bi wateya tak di cîhanbîniya vê pergalê de misilmanê Şîî yê 12 Îmamî peyrewê mekteba binajoya Welayeta Feqîh e.



**Li pişta çêkirina Avbenda Geliyê Bendê armancên gemar û nejadperestane hene, ne armancên xizmetkirinê**

Di cî de ye em bo vê rastiyê ku heya niha bi dirêjiya temenê Komara Îslamî de çi di yasa û çi di piratîkê de peyrewî jê hatiye kirin, îşareyê bi vê gotina Farsî **her kes ji me nebe, bi me re nine** bihê kirin, serbarê vê jî Komara Îslamî bi van şaşiyên dîrokî nesekiniye, belkî di pêxem vê cîhanbîniya xwe ya nateba di gel serdem de bi awayekî aktîv kar jêre kiriye. Derheq vê cî pêyê biyom yê Komara Îslamî jî em dikarin îşareyê bi guherîna warê etnêkî di Parêzgeha Xozistanê de bikin. Guherîna cihê neteweya Ereb li ciheke hesas ku di pêşerojê de dikare bibe sedema ne cihgîrbûnê ji bo rejîmê, her wiha anîna neteweya Azerî ji bo Xozistanê cehdeke din ji bo lawazkirina nifîsa Azeriyan e ku bi dirêjahiya temenê xwe di welatê Îranê li wî cihî de akincî ne ku li cîranetiya wî welatî de neteweya Azerî xwediyê hin xalên hevbeş e ku cihgirtina van jî dikare ji bo Komara Îslamî cihê tirs û nigeraniyê be.

Bi kurtî bi merema perjînkirina hin deveran bi terzekî sîstematîk wekî Urmiyê ku xwediyê hilkefteke hesas e, bi taybetî piştî hatine rojeva qala endambûna Turkiyê di Yekîtiya Ewropayê de, di dema 5 hetanî 15 salên pêşerojê de; rayedarên Komara Îslamî dest bi bernamerêtinê kirine heta ku rol û nexşê Kurdan li dor Azeriyan lawaz û bêhêz bikin. Ji ber wê ku Kurd li Urmiyê bi dirêjahiya jiyê xwe dijî desthilata navendî bûne, lê Azeriyan rolê desthilat û parêzvanên desthilatê lîstine.

Destpêka vî karî jî weke gava yekem di xarîteya sala 1380 (2001)'an ya Şaredariya Urmiyê de derdikeve ku hêleke sor li dora parek ji Urmiyê de kêşa bû û girê dida bi zevî û erdên Kurdan ku ji bo çêkirina bajarokan ciheke bedew û jêhatîtir li gor rûyê din yê hêlê bû ku diçe bo aliyê herêma rûnişvanên Azerî (ber bi Rojhilatê bajêr).

Her piştî wê jî avakirina Avbenda geliyê Bendê ku ava wê ji deverên Kurd akincî ve çavkaniyê digre, ger ji 150 kîlometran pêştir hatiba lêdan, wî çaxî pûte û giringiya wê ji bo herêmê derdiket. Lê niha avakirina Avbenda geliyê Bendê li wî cihî tu qazanc û mifahek ji bilî avdanîkirina zevî û erdên Azeriyan û misogerkirina ava vexwarinê ji bo Tewrêzê nine.

Serbarê wê jî avakirina bajarekê li pişt Avbenda geliyê Bendê bi navê **Sîlvana** muhra erê ya hikûmetê ji bo vê merema qirêj û mirar e. Heke em bihên ji dîtingeha qasê cî bi cî bûna daxwaziyan û pêşketin û alav û îmkanatên jiyanê li bajar li gor gundan mêzeyî diyardeyê bikin, tê dîtin ku roj li pey rojê qasê wan kesane ku rû ji bajar dikin, zêdetir dibe. Yanî gund wekî ciheke şandina Kurdan bo bajar tê dîtin û bajarê Sîlvana jî li gor helkeftê dikeve navbera bajarê Urmiyê û devera Kurd akincî ya Mirgewer û Tirgewerê. Bi wateyekî din berbesteke Kurdî li pêş bajarê Urmiyê. Ji aliyê din jî avakirina bajarê **Sêro**'ê yan **Gengeçîn**'ê cehdeke din e ji bo bihêztir kirina hêla Kurdî li derdora Urmiyê.

Ev terze karane parek ji van pîlanên siyasî yên domdirêj yên Komara Îslamî ne heta ku bikare di girava tem û mija Rojhilata Navîn de balgê tenahî û rihetiyê li bin serê xwe danêt.

# Demokrasî, biha û piratîka wê

**(Beşa 17)**

**Kurmanc HAKKÎ**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**Teoriya çend rehend ya Bêytz**

Bingeha teoriya wekheviya siyasî ya Bêytz li ser xalên lawaz yên teoriya sakar ya wekheviya civakî ye ku em di beşa berê de li serê rawestan, hatiye damezrandin. Bi vî awayî em dikaribin bipirsin erê gelo wekheviya pirêfirêns a takekesan di hilbijartinê de ***mimkun*** e? Bêytz şiroveyeke din li bi cîh anîna wekheviya siyasî di biryarên kolektîv da dide xuya kirin. Mirov dikare bibêje şiroveya wî berî ku wekheviya siyasî be, dadperweriya siyasî ye.

Bi baweriya Bêytz dadperweriya siyasî li ser bingeha ***rêzgirtin ji kesayetiya takekes*** hatiye damezrandin. Eva tê wê wateyê ku takekes bê liberçav girtina bingeha aborî, civakî û siyasî ya xwe wek welatiyên wekhev rêz ji wan tê girtin. Di civakên demokratîk de welatîbûnê du (2) alî hene: Ji aliyekê welatî ektorên siyasî ne û ji aliyeke din armanca siyasî[1] ne. Ji ber wê jî di metodên biryarên siyasî de dadperwerî mercek gelek giring tê dîtin. Her çend ew merce jî hemû mercên dadperweriya siyasî pêk naîne. Ji mêzegeha teoriya Bêytz ku bi prosêdoralîzma ramyarî tê nav birin, divêt di biryarên kolektîv de pirsa rewşa civakî û dadperweriya siyasî bê berçav girtin. Ji ber wê jî Bêytz navê teoriya xwe daniye ***prosêdoralîzma aloz***.

Bingeha dîtina teoriya Bêytz ewa ye ku her mirovek wekhev e û bi awayekî otomatîk welatî ye. Li gor wê dîtinê navendên ku bi awayekî demokratîk tên hilbijartin û biryarên demokratîk birêve dibin, divêt cihê pesenda hemû welatiyan be. Li gor teoriya wî di metodên biryardana civakî de divê her takekesek bi awayekî dadperwerane hatibe berçav girtin.

Li gor teoriya dadperweriya siyasî, merca dadperweriya siyasî ewa ye ku her welatiyekê mafê wê çendê hebe bê tirs li ji destdana cih û bingha civakî ya xwe enistîtu û navendên biryardanê bixin bin rexnê. Eva tê wê wateyê ku cihê her kesekê bi awayekî objektîv di gel wan takekesên ku di rewşeke mîna kesê rexnegir heye bê analîz kirin. Di wê dîtinê de şirovekirina mirov der barê xwe û cih û rewşa civakî ya xwe bi awayekî subjektîv ne bese. Ji ber ku mirov gelek caran di baskirin li ser rewşa xwe de yan zêdebêjiyê dike yan jî cihê xwe kêmtir ji wê yekê dibîne ku bi rastî heye.

Di prosêdoralîzma aloz de welatî wek takekesên yeksan û otonom tê dîtin, ku xwediyê maf û cihê bandorê li ser biryarên siyasî hene, ger ew vê yekê hewce bibînin. Bêytz sê (3) pênaseyên pêwendîdar bi berjewendiyên welatîbûnê şirove dike: ***dan pênan, tevgeriyana dadperwerane û erka lêkdanewê.*** Bi baweriya Bêyzt ew sê mercane divêt di normên beşdariya welatiyan di prosesên siyasî de bên berçav girtin. Bi watayeke din mercên beşdariya welatiyan li prosesên siyasî bên şirove kirin. Li gor wî welatiyan mafê vê yekê heye beşdariya ev prosêsa siyasî ya ku berjewendiyên wan dişkînin, nekin an jî wê alternatîvê hilbijêrin ku kêmtir berjewendiyên wan pêpest dike. Hebûna alternatîvên cur bi cur ku berjewendiyên civakê bi awayên cur bi cur şirove dikin, berhema demokrasiyê û cihê aloz yê (complex) mirov di civakên demokratîk de ye.

Merem ji ***dan pênan***ê ewa ye ku hemû welatiyan bi awayekî wekhev mafê beşdarîkirin û bidestveanîna rolekê di guftûgoyên demokratîk û bidestveanîna pile û cihê civakî di karên dewletî û hilbijartina kolektîv de heye. Bi watayeke din dan pênan bi wê yekê ku takên welatî dikaribin bibin biryarderên siyasî jî. Eger di prosesên demokratîk de yan di prosesên biryardanên kollektîv de kêmaniyek neteweyî, ayînî û hwd... ji derve bimînin, em dikarin bibêjin ku mafê welatîbûnê bo wan nehatiye nas kirin. Li gor wê şirove kirinê em dikarin bêjin di Komara Îslamî ya Îranê de neteweya Kurd wek welatî nahên hesab kirin. Ji bilî wê yekê ku mafê hilbijartinê bi Kurdan nahê dan, takê Kurd mafê wê yekê nine beşdariyê di prosesekê bike ku bo nimûne bê hilbijartin bo Serok Komariyê an jî endambûn li Konseya Parêzeran[1], Meclîsa Xubregan û zor organên din. Ji ber ku di Komara Îslamî ya Îranê de mafê wê yekê bi Kurdan nahê dan rola ***biryarder*** di siyasetê de bilîzin.

Berjewendiya duyem ya welatiyan tevgeriyans wekhev û dadperwerane digel wan e. Ew merca han li ser bingeha wê hatiye damezrandin ku welatî ***armancên siyasî ne***. Bi watayeke din hemû daxwazî û dîtinên welatiyan di biryardana siyasî de divêt bê berçav girtin. Li gor wê dîtinê hemû xwastekên welatiyan li gor pele û cihê objecktîv yê wan divê bên berçav girtin.

Merca sêyem ya welatiyan berpirsyarî li beşdarî kirin di prosesa siyasî de ye. Ewa jî bi wateya wê tê ku welatî wek siyasî tên dîtin. Li gor wê yekê erka welatiyan e ku beşdariyê di çareseriya pirsrgirêkên siyasî û civakî de bikin, dema ku wan zanyariyên hewce bi dest anîne. Ew prosêse divêt vekirî be ji bo bîr û ramanên cur bi cur û rikeber.

Bi kurtî di prosêdoralîzma aloz de biryardan li ser bingeha guftûgo û diyaloga eşkere û vekirî hatiye damezrandin. Gelek caran ew rewşa han bi bêdadperwerî tê dîtin.

Ji bo şirove kirina wê yekê em wilo dabinên ku pênc (5) kes bi otombêlekê re rê diçin. Em wilo dabinên ku di wan pênc kesane de çar kes cigerê dikşînin û kesek jî cigerê nakişîne. Ger bihê û li ser mafê cigere kêşanê di nav otombêlê de biryara demokratîk bê dan, wê gavê cigerekêş dê bibin piranî û yên cigere nekêş dê bibin kêmanî. Di rewşeke wilo de mirov dikare bibêje edalet cî bi cî nebûye. Erê gelo rast e ger prêfirênsa her takekê bi awayekî wekhev bandorê li ser biryardanê bike, bêy ku naveroka wê bê berçav girtin. Gelo di demokrasiyê de nabe giraniyek bi bîr û ramanan bê dan?

Ger biryara serê bi awayê Bêytz bê dan, wê demê berî biryardanê li ser alternatîvên cur bi cur axaftin û diyalog dê çê bibe û encamên her yek ji alternatîvan bo biryarderan dê bê şirove kirin. Li gor merca dan pêanînê her yek ji dengderan çi ewên dijî cigere kêşanê ne û çi ewên alîgirê wê ne, dîtinên xwe dê bi awayekî wekhev şirove bikin. Bo nimûne alîgirên cigere kêşanê dikarin bêjin ku rêya wan dirêj e û dixwazin rêya xwe bi cigere kêşanê kurt bikin. Û yê ku cigerê nakişîne, dikaribe mesela saxlemiya xwe û ewa ku ewî alerjî bi dûkela cigarê heye, hegera dijberiya xwe tevî cigere kêşanê bîne ziman. Bi vî awayî hem dijberên cigere kêşanê û him jî alîgirên wê bi şêweyeke wekhev şiyane dîtinên xwe bînin ziman û mercên wan li gor bilezbûn û hewcehiyê hatiye berçav girtin.

Bi baweriya berpirsiyariya beşdariyê, hemû rêvîng sozdar in[1] zanyariyên nexweşiya asm û alêrjiya ev rêvîngê ku cigerê nakişîne bi dest bînin ji bo guftûgoyeke eşkere ser vê pirsê. Ji bilî wê yekê rêvîng sozdar in ku bîr û ramanên xwe bi awayekî jîrane û mentiqî bînin ziman. Hizr û dîtina her kesekê pêwendî bi nêrîna kesên din jî heye. Di wê pirsê de hewcehiya 4 rêvîngên cigere kêş bi nîkotînê li hember li tehlûkê xistina kesê cigere nekêş ku dikaribe bi dûkela cigera wan bê kuştin, gelek hewce û bilez nine. Lewra li gor hizra Bêytz rêvîng dikaribin bên ser vê biryarê ku cigerê nekşînin.

Em di hejmara tê de doma wê mijarê dê şirove bikin.

# Serdana şandeka hevbeş ya PSK'ê û PDK Bakur ji binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê

Roja çarşemî 26.10.2005'an, şandeka hevbeş ya Partiya Sosyalîst a Kurdistanê û Partiya Demokrat ya Kurdistana Bakur ku pêk hatibûn ji birêzan **Mesûd Tek,** Sekreterê Giştî yê PSK'ê û **Rojhat Amêdî,** Sekreterê Giştî yê PDK Bakur û mamosta Seîd Çîçek û mamosta Kovan û Kako Diyarbekrî, serdana Deftera Siyasî ya PDK Îranê kirin û ji aliyê birêz **Mistefa Hicrî,** Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û birêzan **Hesen Şerefî**, Cîgirê Sekreterê Giştî, Elî Mêhrperwer û Mihemed Nezîf Qadirî endamên Deftera Siyasî ve bi germî hatin pêşwazî kirin









Di vê hevdîtinê de birêz Mesûd Tek û Kekê Rojhat Amêdî baseke siyasî li ser rewşa Kurd li Turkiyê, siyaseta Yekîtiya Ewropayê li dor Turkiyê û bandora guhertinên deverê li ser pirsa Kurd û bi taybet bandora bidestxistiyên Kurdan li Îraqê li ser tevgera rizgarîxwaz ya Kurd li Kurdistanê kirin. Herwiha wan di dîtin û nêrînên xwe de dan xuya kirin ku ji ber ronahiya vê rewşa siyasî de em (her du Partiyên Bakur) bi prtokoleke hevpar gihîştine û ev prtokole dikare bibe mekanîzmek ji bo hevkarî û pişikdariya Partiyên siyasî yên Bakur.

Piştre birêz Mistefa Hicrî pîrozbahiya pêkanîna vê eniya hevbeş ji wan kir û keyfxweşiya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê ji bo gihîştin bi vê prtokolê da eyanê û dîtinên PDK Îranê li ser guhertinên siyasî yên herêmê û prosesa demokratîzasiyonê di Rojhilata Navîn de û rola çalakiyên Kurdan di vê prosesê de bas kir û amadebûna siyasî ya partiyê ji bo alîkarî û dostînî û berfirehtir kirina têkiliyên neteweyî û nîştimanî bi hemû Partiyên siyasî yên şoreşvane Kurd re anî ziman.

## Mehmûd Ehmedînejad daxwaza ji nav birina Îsraîlê kir!

Serok Komarê Îranê yê Terorîst, Mehmûd Ehmedînejad roja çarşemî, 27.10.2005'an de, di Konferansekê de li Tehranê li jêr navê **Cîhana Bê Sehyonîzm** daxwaza ji nav birin û hilweşandina Îsraîlê kir.



Wî gotina Serokê olî û damezirînerê rejîma Îslamî ya Îranê Xumeyn' dubare kir ku digot: "**Hewce ye Îsraîl li ser xarîteya cîhanê nemîne û bihê derxistin**."

Axavtina tund ya Serok Komarê terorîst yê Îranê, Ehmedînejad bû sedema nîşandana nerazîbûnê ya serokên welatên cîhanê û bi tundî Îran şermezar kirin. Yekîtiya Ewropayê, Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê, Rûsya û çend welatên mezin yên cîhanê axavtina Ehmedînejad mehkûm kirin û nigeraniya xwe ji armancên etomî yên Îranê dan zanîn.

Axavtina Ehmedînejad hemû cehd û hewla dewleta Îslamî ya Îranê ku wan rojane berdewam ji bo destpêkirina gotûbêjên dîplomatîk di navbera wan û Yekîtiya Ewropayê de li ser bernameyên Îranê yên nepenî bo dewlemendkirina Uraniyûmê û çêkirina çekên Etomî li avê ber da.

Konseya Ewlekariyê ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ew gotina Serok Komarê Îranê mehkûm û şermezar kir.

Rayedarên bilind yên dewleta Îsraîlê daxwaza derxistina Îranê ji endametiya Neteweyên Yekbûyî kir.

Komara Îsalmî ya Îranê bi tundî dijberiya pêvajoya Aştiya Rojhilata Navîn di navbera Filistînî û Îsraîliyan dike û welatê Îsraîlê bi fermî nas nake.

## Serdana Birêz Mesûd Barzanî ji Koşka Sipî bi kincên Kurdî

Di roja duşemî 25.10.2005'an de, Serok Komarê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê Corc Buş pêşwazî ji birêz Mesûd Barzanî Serokê Herêma Kurdistanê kir. Serokê Herêma Kurdistanê bi kincên pîroz yên Kurdî bû mêvanê Serokê DYA'yê.



Corc Buş Serok Komarê Amerîkayê, derheq cil û bergên Kurdî yên Birêz Mesûd Barzaî got: "Heke di çaxê desthilatdariya Sedam Husên de, Mesûd Barzanî bi van kincane bihata girtin, mêrkujên Sedam Husênî dê Mesûd Barzanî bikuşta."

Di daxuyaniyeke çapemeniyê de Serokê Amerîka, Corc Buş pesna rola Mesûd Barzanî di avakirina Îraqa nû û qanûna bingehîna nû ya Îraqê de kir. Wî got ku ji bo wî şeref û rûmeteke mezin e ku ez li Seraya Sipî pêşwaziyê ji Serokê Herêma Kurdistanê bikim.

Roja sêşemî, 26.10.2005'an, birêz Mesûd Barzanî bi Wezîra Derve ya Amerîkayê, Kondalîza Rays re jî hevdîtin pêk anî.

# Lênihêrînek bi ser Kongreya Neteweyên Îrana Federal

**BÊKES**

Nifûsa Îranê ji kêmaniyên netewî û olî yên cuda cuda pêk hatiye, bi gotineke din Îran welateke pir neteweyî ye. Ji bilî pênaseya çandî ya cuda, xasmaniya ber bi çav ya van gelane, çarçoveya coxrafî û dîrokî ya taybet bi wan e ku her yek ji wan di çarçoveyeke taybetî li gor welatê Îranê û deverê dide xuya kirin û wan girêdayî bi axeke diyarî kirî dinasîne. Bi awayekî giştî wan wekî zincîrekê tixûbên welat dorpêç kirine. Ev hilketina di sînoran de tenê ji ber cîgirbûna wan li wir nebûye, belkî akinciyên wan di dirêjiya serdemên cur bi cur di wan cihane de sînorvan û nobedarên çeleng û mêrxas bona pêşgîrî kirin ji êrîş û gefên welatên cîran û biyaniyan bûne. Serbarê vî halî ji hêlên din wekî: Birêvebirina qanûnên dewletê, hebûna îmkanat û îmtiyazên cur bi cur yên aborî û siyasî di rêya avakirina jiyaneka civakî li ser bingeha pêşvebirin û girîngîdan bi çanda xwe rêxistina xwe tevî karwanê jiyana nûjen ya îroyîn. Wan kêmaniyên bandortêkirina qanûnê ji çanda giştî ji bo meşandina edaleta civakî, aborî, pêkhateya siyasî û wekheviyê. Lê di hikûmetên ne demokratîk û zordar de tevî hakimbûna rewşa çewisandinê û rewa nebûna rexneyê ji desthilatê û qedexebûna xebata rewşenbîriyê ji bilî dijberiya tund û tûj ya xurt awayekî din tune ye.

Her yek ji neteweyên niştecih yên Îranê di dîroka xwe de xebat û tekoşîna siyasî meşandine. Lê bi çend sedeman û nemaze: bihêzbûna siyasî, leşkerî û aborî ya dewletên desthilatdar, bertengiya xebata wan bi herêmele girtî re, kêmasiya organîzayonê û nebûna bernameyên pêwîst û hwd... hatine perçiqandin yan tekoşîna wan hatiye teng kirin. Bêşik rejîm li gor girûpên neyar xwediyê hêzeke xurtir e, lê sedemên mayîn ku heya îro ji bo rejîmê wek xalên erênî û pozetîv di serkevtina wan di serkut û çewisandina neyar û dijberan dihate hesibandin, em dikarin wan dijî rejîmê û ji bo gihîştin bi serkevtina neteweyî bihêz bikin. Di rêya



**Kongreya Neteweyên Îrana Federal di roja 21.02.2005'an de, li Londonê pêk hat**

neteweyî ji ne wekhevî û bêdadiyê êş û kovan kişandine û wekî sedemeke serhildana van netewane ji bo xebat dijî rejîmên cuda cuda hatiye hesibandin.

Di rastî da xebat û tekoşîna wan tenê bi sebebê seha nasyonalîstî nebûye, belkî em dikarin çawaniya desthilatdariyê û hest pê kirin bi hebûna ne wekhevî û cudahîdananê û xebat ji bo parastina nasname û kesayetiya wan ya neteweyî wekî sedemên bingehîn yên xebata wan li nav bikin. Bêguman bi dîtina vê çendê ku çanda piranî (neteweya serdest) yê bûye pîvanek ji bo çawaniya çêkirina pêkhateyeke siyasî, lewra kêmaniyên neteweyî jî xwe bindest û mecbûr bi pejirandina desthilateke din dizanin; eva bi xwe dibe sedema bikaranîna şeklên serhildan û dijberiyê ji bo vîn û îradeya neteweyî û bidestxistina vê armancê de, pêkanîna eniyeke hevgirtî û xwedî armanceke hevbeş dikare di vê derheqê de rêyê fireh bike. Pirsên di vê derheqê de û têkildar bi vê hevhatinê, hewcehî bi piraktîzebûna teoriya hevgirtina neteweyên Îranê, wekî pêwîstiyeke usûlî seh pê tê kirin.

Li ser bingeha vê hewcedariyê di roja 2'ê Reşemeya 1383'ê Rojî (21.02.2005)'an de, li Londonê kongreyek pêkhatî ji nûnerên neteweyên bindest bi navê **Kongreya Neteweyên Îrana Federal** hate li dar xistin, hetanî bibe komek ji bo nêzîkbûna bîr û raman û kêmkirina astengên heyîn di rêya xebat ji bo cîgirkirina demokrasiyê û edaletê di Îranê de. Girîngiya vê kongreyê ji ber heyeta sembolîk ya wê nine, belkî ji çend aliyên cuda cuda bala mirov dikşîne û girinfg tê zanîn.

Di rewşa hesas ya niha de, etmosfera zal bi ser Rojhilata Navîn encamên wê û bandora van encaman li ser siyasetên rejîma Komara Îslamî, vê rejîmê neçar dike ku helwesteke hevbeş bi armanceke diyar kirî bigre û dengvedana bandora wan li ser cîhana derve dê bibe sedem ku bala alîgirên demokrasî û azadiyê bi vê Kongreyê û armancên wê pêtir bi qazancê neteweyên bindest be. Pêkhatina vê Kongreyê dê bibe sedema xurtbûna dubare ya têkiliyên pêş hiloşîna rejîmê di navbera neteweyên Îranê, eva xwe dê bibe sedema çêkirina hîmê stûnên destpêka demokrasiyê, yanî tabkirina hev, pêkanîna wekheviyê li hember qanûnê û hwd... . Piştî hiloşandina rejîma Îslamî a Îranêbi vîna neteweyên vî welatî, beşdariya hemû civatên xelkê û hevparbûna tev taxan di biryardanê de rêyê li hember qewimîna bûyerên nexweş digre.

Ew Kongreya wekî saziyeke fermî, pêkhatî ji nûnerên xebata neteweyên cuda yên Îranê ji bo cîgirkirina armanca cîhanî (domkrasî) dê bikaribe di navbera daxwazên xelkê ku nûneriya wan di stû de ye, tevî peymanên hiqûqê yên navneteweyî wekî mafên mirovan, azadiya ra derbirînê û azadiya dîtin û ramanê wek navgînên bi hitbar rolê dilîzin.

Dewleta Îslamî ya Melayan beriya wê ku dezgeheke parastina welekariya giştî sedema bicîanîna bernameyên civakê be,, pitir di xizmeta komeke xasmanî û çandina muhreyan ji hin tax û qatan tevî taybetmendiyên neteweyên xasmanî ye û yê bûye dezgeha serkut û çewisandinê di xizmeta saziya Welayeta Feqîh (Serokê Olî yê rejîma Îslamî ya Îranê). Tenê sedema ku dikare vî hukmê mutleq (zal) ji nav bibe û desthilatê ji van xasmaniyan bêpar bike, pêkanîna civaka medenî û peloral di civaka pir neteweyî ya Îranê de ye. Heya niha ku daxwaziyeke wiha di nav desthilatê de û bi hebûna vê rejîma gemar heta radeyekê bê encam maye, li hevdana vê bê edaletiya tam û perçiqandinê, bi alîkarî û hevfikriya neteweyên bindest ku ji diyarî kirina mafê qederê hatine bêpar kirin, dikare gavake bilez û jêhatî ber bi pêş de be.

## Malpera Kongreya Neteweyên Îrana Federal



Kongreya Neteweyên Îrana Federal, wekî yekemîn Eniya neteweyên Îranê di 21.02.2005'an de, li bajarê Londonê dest bi xebatê kir. Vê saziyê ji bo xuyakirina kar, xebat, çalakî û nasandina armancên Kongreyê malpereke înternêtê vekir.

Malper bi du zimanên Farsî û Îngilîzî weşanê dike.

Navnîşanê malpera Kongreya Neteweyên Îrana Federal eva jêr e: **http://www.federalcongress.org/**

# Katalan, Bask û Galîsî

**N: Maşala REZMÎ**
**W: Şehab XALİDÎ**

Katalan di sedsala sêzdan û çardan de hêza ticarî a mezin ya di navbera sê qareyên Ewropa, Asya û Afrîqayê de bûye û piraniya girav û benderên Medîterane di destê Katalaniyan de bûn û tenê xarîteya ticarî ku ji sedsala 15'an bi cî maye, bi zimanê Katalanî ye ku dibêjinê (Etlesa Katalanê). Zimanê Katalanê ji malbata zimanên Hind û Ewropayî ye. Niha yên ku di welatên Îspanyayê, Îtalyayê û Fransayê bi zimanê Katalanê dipeyivin, 12 milyon kes in. Katalan yek ji çar zimanên fermî yên di Îspanyayê de ye û çimku zimanê Katalanî zimanê fermî yê welatê serbixwe yê Paşatiya Anderayê ye, lewre ji hêla Yûneskoyê ve zimanê kêmaniya qewmî nahê nasîn, belkî yek ji yazdeh zimanên fermî yên Yekîtiya Ewropayê ye.

Partiyên siyasî yên Katalanê di şerên navxweyî yên Îspanyayê (1936-1939) de, ketine rexê Komarîxwazên Çep, û bi şikesta Komarîxwazan û serketina Firankîstan ku bi sedema piştevaniya Hîtlêr ji Jeneral Firanko bi encam gihîşt û dîktatoriyê per û baskên xwe bi ser Îspanyayê de kêşand, êdî Katalanîzm hate qedexe kirin û her cure daxwaziyeke neteweyî bi sûç dihate hesibandin.

Bi mirina Franko di sala 1975'an de, yasaya Otonomiya Katalanê sergirt û di sala 1978'an de yasaya Otonomiya Katalanê ji hêla Parlemana Îspanyayê ve hate pejirandin û rolê bingehîn di hikûmeta herêmî a Katalanê de ku bi **Cinralîta** tê binav kirin, kete destê Partiya Nasyonalîst ya nermrew ya **Hevbendî û Yekîtiyê** de. Vê Partiyê siyaseta yekîtiya bi hikûmeta navendî ya Madrîdê re hilbijart û karî sîstema îdarî ya Otonomiya Katalanê bikemilîne, rewşê ji bo geşekirina Partiyên din yên neteweyî ên Katalanê pêk bîne.

Gera nû a Katalanîzmê ji wir ve dest pê kir ku di sala 2004'an de tevî bi dawî hatina gera Serok Weziriya Aznar di Îspanyayê de, siyaseta navendîtiyê dişopand û bi hatine ser kara Zapatore di meha Marsa sala 2004'an de rolê herêman û kêmaniyên neteweyî di Îspanyayê de zêde bû. Xozê Loî Zapataro û Partiya Sosyalîst a Îspanyayê berevankerê Peloralîsma neteweyî ye.

Bi têk çûyîna Partiya Hevbendî û Yekîtiyê di Hilbijartina Katalanê û vêdedana Xurdî Puxa (Serokê dîrokî yê Katalaniyan), niha Paska Maraylo, Serokê Partiya Sosyalîst a Katalanê serokê hikûmeta Otonom e ku raya giştî bo aliyê xwe radikêşe. Maraylo di meha Disembera sala 2004'an de, bona gihîştin bi desthilatê bi serbixweyîxwazên Komarîxwaz yên Çep re yekîtiyek pêk anî û pirogrameke hevbeş bi wan re îmze kir ku bi pirograma **Beşdariya Rasterast** hatiye naskirin.

Merem ji beşdariya rasterast, endametiya rasterast a Katalanê di Yekîtiya Ewropayê de ye. Serxetên (Manşetên) girîng yên vê pirogramê navbirî ne ji: Daxwaza endametiya serbixwe ya Katalanê di Yekîtiya Ewropayê de, serxwebûna herêma Katalanê ji herêmên din, giştî kirina bikaranîna zimanê Katalanê û biryara pirsa koçberan di çerçoveya desthilata Hikûmeta Katalanê de.



Maragla pêşniyar bi dewleta navendî kiriye ku wergirtina malyatê ji xelkê Katalanê divêt di çarçoveya desthilata hikûmeta herêmê de be û tenê nîviya malyatê birêjne nav sindoqa hikûmeta navendî de.

Maragla daxwazkarê cudahiya Katalanê ji Îspanyayê nine, belkî xwe bi berevankerê sîstema Peloralî dide naskirin ku ji aliyê Zapataro, Serok Wezîrê Îspanyayê ve hatiye holê.

Bi raya Marayla şaşiya mezin ya nasyonalîstên kevneşop yên Katalanê eva bû ku bona gihîştin bi armancên xwe yên dawiyê hez nekirine yan jî cehd nekirine da ku beşek ji desthilatê an jî nîviya desthilata navendî di Madrîdê de destve bînin, çimku di hinek qonaxan de ev yeka îmakn hebû ku bi kiryar ser girtiba. Bi vê dîtingehê Katalanîzm êdî bi tenê bidestveanîna Otonomiya aborî û serxwebûna çandî di bazneya berteng ya Katalanê de nabe, belkî dê cehd û tekoşînek be ji bo guherîna bingehîn û esliyeta dewleta Îspanyayê û guherîna vê bi dewleteke Post Modern a Ewropayî da ku ji rewşa **Dewlet- netewe** ya kilasîk a niha de derkeve.

Maragla sîstema siyasî ya **Federalîzma Asimtirîk** ji Îspanyayê re pêşniyar diket, ku tê de hemû herêmên welat bi qasê hev nabine xwediyê Otonomiyê, belkî hinek herêm dibine xwediyê serxwebûneke tewaw û hinek herêmên din jî li jêr serperistiaya hikûmeta navendî de dimînin.

Xelkê Katalan û Baskê hevdem piştî mirina Franko, Otonomî wergirtin, lê ji bona gihîştin bi armancên dawiyê rêyên cur bi cur hilbijartin. Katalanê xebata Parlemanî û partîtiyê bi awayê aştîxwazane hilbijart, lê Baskê hemen xebata nepenî û çekdarî ku ji serdemê Firanko re dest pê kiribû, domand. Di vê xebatê de di dirêjahiya 35 salên derbasbûyî de zêdetir ji 8000 kesî canê xwe ji dest dane ku nîviya wan kadroyên serbixweyîxwaz yên Baskê bûne. Lewre nekariye kesayetiyên siyasî yên xwedî ceribîn perwerde biket. Eva di çaxekê de ye ku Katalan di vî heyamî de nifşeke nû ji teorîsyen û jin û mêrên siyasî perwerde kiriye ku ne tenê di radeya welatê Îspanyayê de di seranserî Ewropayê de naskirî ne û ramanên baş ji bo guherîna sîstemên hikûmetî û çareser kirina pirsa neteweyî tînin holê.

Piştî bûyera 11'ê Septambera sala 2001'an di Niyoyorkê de, raya giştî di welatên Rojavayî de dijberî xebatên tund û tûj in û her terze karekî çekdarî bi terorîzm bi nav dikin û ev karê çekdarî ji hêla wan ve dikeve refa emeliyata reşbînên dijî şaristaniyetê. Her ev kiryara bû sebeb da ku artêşa rizgarîxwaz a Îrlanda Bakur bi awayekî fermî xebata çekdarî ret biket. Piştî teqîna Şemendefirên bajarê Madrîdê di sala 2004'an de, serbixweyîxwazên Baskê jî çi kiryareke çekdarî encam nedane.

Baskiyan bi dewleta Îspanyayê re dijayetiyeke mesebî çi ninin û îmkana pêkhatina siyasî bi dewleta Îspanyayê re di vira de pitir ji Îrlandayê ye. Çimku di Îrlandayê de dijberiya dîrokî ya Katolîk û Perotestanan pirsa pêkhatin û hevgirtinê asteng dikir. Niha hekî Katalanî bikaribin Baskiyan bo xebateke aştîxwazane û dûr ji tund û tûjiyê razî bikin û bidine gel xwe, wî çaxî Katalan, Bask û Galîsî dê bikaribin vê cure otonomiya zaf ku Katalan dixwaze bidestve bîne, bi hevre vê Otonomiyê bi destve bînin. Mirov dikare bibêje ku bi lihevhatina van sê neteweyan, Federalîzma Asîstirîk di Îspanyayê de, dê di qewareya teorîk de derkeve û dê bibe rastî.

# BEDELXWÎNÎ

**WELAT**

Hin tîtal û sunetên kevn, nebaş û paşverû di civaka Kurdî de hene ku hertim bûne asteng û sebeba tepeserkirina xwestikên mirovî yên jinan, bûne sedema wê ku jin di vê civaka mêr serdest de hertim bikevin bin zext û zulm û zorê û mafê wan jê bihê zevt kirin. Civakek ku her di dema jidayîkbûnê de zarokê kur dielimînin ku çawan mêr bin û ji mêr serdestiyê peyrewiyê bikin û herweha zaroka keç jî dielimînin ku çawan jin bin û li hemberî zolm û zora mêran de bêdeng û peyrewker bin.

Yek ji wan kevneşopên dijî jinan ku per û baskên xwe bi ser civaka me de kişandiye, **bedelxwîn** e. Di civaka kevneşop û eşîreyî ya Kurdan de hertim di navbera eşîran de bi merema dagîrkirina av, zevî û zozanên hev û zaf hincetên din bi piranî şer çê dibe û zaf caran mêrên eşîretan di vê derheqê de hatine kuştin. Şerek ku jin têde ne pişikdar in û ne jî berpirsiyariyek hene. Lê ya ku balkêş e, eva ye ku her gav mêrek ji hêla eşîreyeke din hatibe kuştin, eşîreya bikuj divêt di hember vê kiryarê de yek yan du keçan wekî bedelxwîn pêşkêşî eşîreya kujer û bi mareyiya mêrek ji wan derbîne.

Zor car jî tê dîtin ku keça ciwan bi mareyiya mêrekê ku li cihê bav û kalê wê de ye û tu xaleke hevbeş bi hev re ninin, tê mare kirin, ev keça bextreş neçare heya dawiya temenê xwe di nava wan kesan de jiyanê bike ku wan bi eşîreya bikuj nav dibin.

Di rastî de jin di civakek wiha de rola alev û amûreke bazirganî û ticarî dilîzin û bi hêsanî tên kirîn û firotinê. Ew neçar in jiyana hevpar a xwe ku tejî ji êş û azar û nerihetî ye, bidomînin. Jiyan di civakekê de ku kincên sipî yên Bûkîniyê bi merem û hinceta sipî bûna kifnê mirina mirov hildigrin û telaq û jihev veqetiyanê jî bi guneheke mezin dihesibînin.



Di vê navberê de jinan rolek bingehîn û bibandor di ji holê rakirina van kevneşopane de ku hemû civaka Kurdî dagirtine, hene û divêt cehd û tekoşînek zaftir bo ji nav birina vê kultur û ramana şaş û kevin bikin.

## Xwendekareke keç bi guneha ne parastina "Hicab"ê bi destê kesên nenas hate kuştin



**Li Îranê jinên ku lixwekirina wan olî û Îslamî nebe, tên ceza kirin. Jinan Azadiya lixwekirinê tune ye.**

Bi sedema berteng kirina azadiyan û matkirina dengê xwendekarên zanîngehên Îranê, Xwendekarên Zanîngeha Azadî a bajarê Sawê daxwaza girevgirtinê li pêşiya vê zanîngehê kirin.

Xwendekaran ji bo şermezar kirina destdirêji bi herêma zanîngehan û kuştina keçekê li qada Felestîn ya Tehranê bi destê kesên nenas, dixwazin roja pêncşemiya tê nerazîbûn û girevgirtineke aram li dar bixin.

## Teqîna mayînê li tixûbê Rojavayê Îranê jiyana 2 zarokên Turkiyê stand

Li gorî dazanîna nûçegihanê Radyoya Farsî ziman a "Farda"yê li Turkiyê, Elî Cewanmerdî, bi sedema teqîna mayînê di paygeheke sînorê Îranê, 2 zarokên Turkiyê hatine kuştin û kesek din jî birîndar bûye.

Zarokê birîndar piştî teqîna mayînê ji aliyê leşkerên Îranê ve bo nexweşxaneya bajarê Urmiyê tê şandin, lê piştî vegerandina wî zarokî bo Turkiyê, ew jî jiyana xwe ji dest dide.

Hêjayî gotinê ye ku hêla tixûbê Turkiyê û Îranê, ji bilî rêyên eslî nehatine nîşan kirin û piraniya rûniştevanên van herêmên sînor bê îcaze diçine nav axa hev. Paygehên herêmên Rojavayê Îranê - ku bajarên Kurdan in - bi salan e ku bi sedema pêşîgirtin ji hatin û çûna Pêşmergên hêzên siyasî yên Kurdên



Îranê ji aliyê hêzên leşkerî yên Komara Îslamî mayîn hatine çandin.

## HAWAR'ê duyemîn kursa perwerdeya zimanê Kurdî li Kirmaşanê vekir

Saziya ne dewletî ya **Hawar**'ê duyemîn kursa perwerdeya zimanê Kurdî wekî terma havînê li Kirmaşanê li dar xist.

Yekemîn kursa Perwerdeya zimanê Kurdî ya havîna sala çûyî di vê saziyê de birêve çû û qasê 90 kesan karî vê zandorê bi serkevtin û başî bimeşînin.

Di terma zivistana îsal de ji bilî perwedeya zimanê Kurdî, kargeha perwerdeya helbestê û çîrokên Kurdî jî tê li dar xistin.

**HAWAR** yek ji saziyên ne dewletî yên Parêzgeha Kirmaşanê ye ku di warên çandî û civakî de xebatê dike. Em mandînebûn û hêviya serkevtinê ji xebatkarên Hawarê re bi hêvî dixwazin.

# Li Serdeştê 2 ciwanan xwe kuştin

Li gundê Birsîvê ya bajarê Serdeştê, di roja 12.10.2005'an de, ciwanekî Kurd bi navê Mensûr Mihemednejad xwe şewitand. Navhatî piştre ji bo nexweşxaneya Urmiyê hate şandin, lê bi sedema giraniya şewatê jiyana xwe ji dest da.

**Xwe daliqandina ciwanê din**

Herwiha ciwanekî din yê Kurd bi navê Awat Hesennejad, roja 13.10.2005'an bi tenef (kindir)ê xwe xendiqand û jiyana xwe ji dest da.

Awat kurê Hecî Hesen yê gundê Nîskawê ya bajarê Serdeştê bû.

Mixabin xwekuştin û xweşewitandina keç û kuran li bajarên Kurdistana Îranê roj bi rojê zêdetir dibe û pêvajoya wê jî xurttir bûye.

## Teqîna Çira bû sedema şewitîna Keçekê



Li gundê Başmax a ser bi navçeya Tîleko ya bajarê Seqizê, di roja 12.10.2005'an de, keça bi navê **Şule Emanî** 14 salî, keça Elî, bi sedema teqîna Çira di serşokê de şewitî û jiyana xwe ji dest da.

## Pareke zaf ji xelkê Îranê nexweşiya derûnî hene

Li gor vekolînên vê dawiyê yên Wezareta Tendurustiyê li Îranê, 21 ji sedê ya xelkê Îranê, yanî 15 milyon kesan nexweşiya psîkolojîkî hene û %6 a xelkê jî bi sedema van nesaxiyane mêjiyê xwe ji dest dane û şêt bûne.

Hêjayî gotinê ye ku ji van 15 milyon kesane ku tûşî nesaxiya psîkolojîkî hene, **%25/9 jin** in û **14/9** jî **mêr** in û **%14** van kesane jî ji texa **ciwanan** pêk tên. Her



**Pareke zaf ji Ciwanên Îranê tûşî meraqê bûne**

Herwiha di encama van nexweşiyane da xwekuştin jî bi terzeke berçav ber bi zêde bûnê de ye. Sedema wê jî piranî vedigere ser nebûna tenahî û ewlekariya giştî ji aliyê hikûmetê û rewşa aborî, siyasî, civakî û hwd... ya xirab di Îranê de.

## Xizanî û belengazî bû sedema xwekuştina du ciwanan li Mehabadê



Li bajarê Mehabadê du ciwanên Kurd bi navên **Mihemed Nesîm Pûr** (24 salî) û **Nadir Newayî** (23 salî) bi sedema xizanî û zextên zaf yên aborî, ruhî- psîkolojîkî dest bi xwekuştinê kirin.

Li gor lêkolînên di vê derheqê de, her du ciwanan piştî nivîsandina nameyê û sedemên xwekuştina xwe, di yek rojê (roja Înê) de û her yek bi terzekê ev kiryare encam dane. Mihemed xwe dihelawîse û Nadir jî sehmê dixwet.

Li gorî zaniyariyan Mihemed canê xwe ji dest daye, lê Nadir heya niha jî sax e û li halê “Kuma” (bêhişî)yê de ye.

## Nerazîbûna Rêxistina Efûya Navneteweyî ji hikmê Kevirbarana Suxrayê

Di encama haydar bûn ji hikmê kevirbaran kirina jinekê li bajarê Weramîna Îranê bi navê Suxra, Rêxistina Efûya Navneteweyî di daxuyaniyekê de tevî şermezar kirina hikmê kevirbaran kirina Suxrayê, herweha nerazîbûna xwe ji qanûnên **Kevirbaran** û **Îdamê** di Îranê de jî nîşan da.

Rêxistina Azadiya Jinan daxwazê ji hemû sazî, kom û komeleyên mirovhez û parêzvanên mafê mirovan û mirovên azadîxwaz dike ku ji bo hiloşîna vê biryarê û ji holê ra kirina hikmê îdam û kevirbaranê di Îranê de nerazîbûna xwe ji rejîma Komara Îslamî bidin nîşan dan.



Kevirbaran kirina însanan yek ji qanûnên hov û nemirovane yên rejîma Îslamî ya Îranê ye ku li ser xelkê Îranê tê meşandin. Qanûnên cizayê ên Komara Îslamî rê dide ku ew kiryare li ser wan kesên ku bi sedema encamdana kiryarên ne civakî û ne şerî, tên mehkeme kirin, bihê meşandin.

### Jinên Bajarê Sine ji zêdebûna tund û tûjiya ji aliyê mêran nigeran in

Li gorî vekolînekê ku ji hêla du kes ji xwnedekarên zanîngeha Parêzgeha Kurdistanê hatiye encam dan, nîviya jinên Kurd yên bajarê Sine ji riftarên tund û tûj yên mêran di malbatê de aciz in. Lêkolîna han dide zanîn ku 61/6 ya bas û qalên mêran tevî jinan, dijûnan in, %37’ê a van qalane jî bi lêdanên fîzîkî re rû bi rî dibe.

Herwiha 15/7 ya jinan jî di dema avisbûn(pêgiraniyê)ê de ji aliyê mêrên xwe kutan dixwen.

***Î. A. Bûnîn***

# Xortanî û kaltî

***Helbestvan û nivîskarê bi nav û deng Îvan Bunîn ji Rûsyeya berê bû û di cîhanê da bê hevta bû, ku bona berhemên xwe yên ser dereca bilind sala 1933'an xelata Nobelê wergirt. Piraniya berhemên wî li xerîbiyê, şaristana hatine nivîsar. Yek ji wana jî ev serhatiya ji jiyana Kurda ye, ku em bi wergera Kurdî raberî we dikin.***

***Di vê berhemê da, ku sala 1936'an hatiye nivîsandin, nivîskarê mezin bi nimûna rasthatineke tevî Kurdan alîkî va derecên xeysetê gelê me yên negatîv, alîkî va jî aqilmendiya civak û folklora me tîne ber çavan û ew her du derece bi hostatî bi hev ra dide hûnandin.***

***Hêja ye em bidne kifşê, ku ev serhatî di efrandinên wî yên bijare da jî cî girtiye û herwaha cihê, bi pirtûkeke biçûk ve jî ronahî dîtiye.***

***Em mêze bikin, ku Bûnîn çawa bi kurdî "dipeyve".***

---

***Wergera ji Rûsî - Têmûrê Xelîl***

---

Rojên havînê yên xweş in, Derya Reş bê pêl û bê deng e.

Gemî di bin giraniya mirovan û barê giran da **dinale**,- di hundurê wê da cî-sitar ne maye.

Riya wê dûr e. Ew dê ji Qrîmê destpê bike û bi riya çivane berê xwe bide Qavfqazê, ber kenarên Anadoliyayê, Konstantînopolê...

Tav diqijilîne, esman çîk-sayî ye, ciwaniya derya narîn xemleke kaw dide wan derdora; em dê hela ji gelek hêwirgehên bi îskelên qerebalix ra derbas bin, dengê qibe-qiba qulinga, gotinên ne li rê û qarîn-qûjîna alîkarê fermandarê gemiyê: *mayna! vîra!* bihên - û paşê dîsa ew der dê lap bêdeng bibe, gemî dê bi hemdî xwe berbi warên çiyayî bilive, ku mirov dibê qey di nav şewqa royê da winda bûne.

Di odên gemiyê yên dereca yekê da cî fireh û paqij e. Lê rex wê qirêj e, cî teng e, rêwiyên ku dibêjî qey cerdên ji eşîran pêkhatî ne, hineka xwe dane bin sîberê, hineka pala xwe dane aspêjxanê, yên mayîn jî dora kûpê gemiyê çarmêrkî rûniştine. Li van dera bîna her tiştî tê, hey bîna germê û bîna ku te dilbaristan dike tê, hey bîna pîs û golegeniyê tê, lê her bîn jî bîneke taybetî ye, ya gemiyê ye, ku tevî bîna ava deryayê ya xweş dibe. Vira mirov dikare jin û mêrên Rûs, **Xoxol**, Rahîbeyên Afonê, usa jî Kurda, Gurca, Huruma bibîne... Kurdên vira lap beyanî ne, ji sibê hetanî êvarê radizên, gurc hey distirên, hey cot-cot direqisin, pêra jî bi sivikayî û çapik-çeleng xwe hildavêjin, mînanî qubeqaza xwe dilivînin û çepika dixin: taş-taş, taş-taş! Ûrisên, ku diçine Filistînê ber ziyaretê, gelekî çayê vedixwin, mêrekî şîşman, ku pişta pîlê wî hinekî ser da gêr bûye, bi riyê tenikî zerîn û porê kuruşkî bi deng Încîlê dixwîne, lê xanimeke mînanî heyva çerdehşevî bi kirasê sor û şera kesk li sêrî heta gerdenê girêdayî, pala xwe daye dîwarê sivderê û çavên xwe yên xweşik qet ji wî nabire.

Gemî li îskela Trabzonê demeke dirêj sekinî. Ez çûme ber kenêr û gava vegeriyam, min bala xwe dayê, wê dîsa komek Kurdên çekdar bi kincên zîtol-zîtolî, bi pêlekana hildikişin. Kalemêrekî qerase û bi hestuyên gir, bi cil û bergên çîl-qerqaş, bi qayîşeke bi xişrên zîvîn li piştê zexm girêdayî, dabû pêşiyê û xulam-xizmetkarên wî jî dabûne dû. Kurdên, ku bi me ra di gemiyê da bûn, bi koma xwe va li cihekê bûn. Wana ji xwe ra cihekê fire vala kiribûn. Peyayên kalemêr çend xalîçe li wir raxistin, balgî danîne ser. Kalê mîna padşakî xwe li wir dirêj kir. Riyê wî mînanî şeva sipî sîs bû, sûretê wî yê zuha usa qimilîbû, ku rengê qemer lê diket. Û çavên wî bi şewqeke nebînayî diçûrisîn.

Min ranêzikayî li wî kir, qerefîska rûniştim, "selam" dayê û bi Rûsî jê pirsî:

-Hûn ji Kavkazê ne?

Ewî jî bi rûsî, bi dilxweşî bersiva min da:

-Tu gotina xwe bêje, camêr. Em Kurd in.

-Hûn di ku da diçin?

Ewî bi awakî sade, lê kubar bersiv da:

-Em diçine Stenbolê, maqûl. Diçine bal sultan bi xwe. Em hedyayê jê ra dibin: heft qemçî, heft şelmaq. Sultan her heft kurên min birine ber şêr. Û gişk jî di şêr da şehîd bûn. Sultan hevt cara dua li min kir, pesnê min da.

-Hî, hî, hî! - xortekî bedew û tîtal, ku hurumekî ji Kêrçê bû, cixare di dêst da li ser serê me sekinî bû û kurtikekî gewr bi êlekê sipî va, şalwarekî ku gelekî lê dihat lê bûn û cotek konderên biriqokî li lingan bûn, bi awakî qerf serê xwe bir-anî û got: -Kalekî ha bi emir mezin e û bi tenê maye!

Kalê li fînoyê wî nihêrî.

-Tu çi yekî xişîm î,- ewî bi awakî sade lê vegerand.- A tuyê kal bibî, lê ez ne kal im û tu cara jî kal nabim. Te mesela meymûnê bihîstiye?

Xortê bedew di bin lêvan da keniya:

-Meymûnê çi?

-De îcar guh bide. Xwedê erd û esman xuliqandiye, zanî - ne?

-Belê, zanim.

-Paşê, Xwedê mirov li rû dinyayê xist û gotê: mirov, tê li rûbarê dinyayê sî salî emir bikî,- tu dê rind bijî, tu dê şa bibî, tu dê bifikirî ku Xwedê hemû tişt li dinyayê her tenê bona te xuliqandiye. Tu ji vê yekê razî yî? Lê mirov fikirî: ewqas baş, lê ser hev sî sal! Çiqas hindik e!- Guhê te li min e,- kalê bi hêbet jê pirsî.

-Belê, guhê min li te ye,- xortê bedew got.

-Paşê Xwedê ker xuliqand û jê ra gotê: tu dê palanê xelqê hilgirî, wê xurcên giran li te bar kin, dê li te siwar bin û bi qemçiya nav çavê te xin. Sî sal ji te ra bes e? Û ker ponijî, kire zirînî, da zîtika û ji Xwedê ra got: ewqas sal çî ji min ra ne?! Xwedê, panzdeh sala bide, besî min e.- Lê panzdeh salên wî, ji kerema xwe ra, ser temenê min da zêde bike,- mirov ji Xwedê ra got.- Û Xwedê razî bû, usa jî kir. Û emrê mirov gihîşte çil û pênc sala.-Bextê mêriv lê xist, ne wisan e?- kalê li xortê bedew nihêrî û jê pirsî.

-Welle, xirab nine,- ewî bi dudilî got û wek xuya bû, tê nedigihîşt ev serhatî bona çi ye.

-Paşê Xwedê kûçik xuliqand û sî sal emir da wî jî. Tuyê, Xwedê gote kûçikê, timdê dirr û har bî, tu dê miqatiyê li mal û milkên evdan bikî, tu dê baweriya xwe bi xelqê xerîb neynî, tu dê bihewtî nenasa, bikî kaste-kast û şeva bêxew bimînî. Û, zanî, kûçik kire zûkînî: xwezî te nîvê wî emirî bida min! Û mirov dîsa hêvî ji Xwedê kir: ewê nîviyê jî ser emirê min da zêde bike! Û Xwedê dîsa di ser da zêde kir.- Emirê mirov niha gihîşte çend sala?

-Gihîşte şêstî,- xortê bedew bi dilekî baristan got.

-Paşê Xwedê meymûn xuliqand, sî sal da wî jî û got, ku ew dê bêy dijwariya û xema bijî, qaraniya tu tiştekî dê nekeve ser mila. Ew dê tenê gelekî eblu be, ji husnê dinê elîwat be,- texmîn dikî; keçel, qerçimokên li eniyê, birûyên rût,- û her kes dê bixwaze li wî mêze bike, lê her kes jî dê bi wî bikene.

Xortê bedew pirsî:

-Ango, ewî jî temenekî ewqas ne xwest û tenê nîvê wî xwest?

-Belê, ewî jî ne xwest,- kalê got, hizing da xwe, hinekî xwe da ser linga, destê xwe dirêjî Kurdekî nêzîkî xwe kir û miştika qelûnê ji dest wî hilda. -Û mirov hêvî kir ku wan sala jî bide wî,- ewî got, dîsa pal da û qulapek li qelûnê xist.

Ew bê deng ma û li pêşberî xwe nihêrî, te digot qey çavên wî rê dikişîne û mîna ku em qet ne li hizûra wî ne. Paşê bêy ku berbirî tu kesî bibe, dest bi xeberdanê kir.

-Mirov sî salên emirê xwe mînanî meriya derbas kir: xwer, vexwer, da û sitand, di şeran da ber xwe da, di şahiyan da reqisî, ser keçên kezî û jinên bedew bengî bû. Lê panzdeh salên kerîtiyê xebitî, mal û milk da ser hev. Û panzdeh salên kûçiktiyê jî miqatî li hebûna xwe kir, ew tiya, hêrs ket, şeva raneza. Lê paşê wek wî meymûnî bêcûre û kal bû. Û gişka jî wek te serê xwe birin-anîn, li ser kaltiya wî keniyan. Ev hemû dê bê serê te jî,- kalê bi awakî qerf ji xortê bedew ra got û miştika qelûnê di devê xwe da bir-anî.

-Lê ew yek çima ne hate serê te?- xortê bedew pirsî.

-Ne hate serê min.

-Sebeb çi ye?

-Mirovên wek min hindik in,- kalê bi bawerî got.- Ez ne bûme ker, ne bûme kûçik,- çima ez dê bibime meymûn? Îcar çima ez dê kal bim?

**Têbînî:**

***mayna! vîra! -*** gotinên Ûkraînî ne û tên mana *werin! lez bikin!*

**xoxol -** ji Ûkraîniyên Protestant ra tê gotin û ne gotineke lîteratûrî ye.

**hurum -** grekî Yûnanî.

***Ji pirtûka "Roza Îerîxona"***
***Berhemên bijare***
***Weşanxana "Panorama"***
**Moskva 1994**

# HÊVÎDARÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Wateya wê ya ferhengî, sepan û kardariya wê çi dibe bila bibe; hestên bendewar û pandî yên ku di rojên teng û tengezar de bi mirov re digihên û rû didin her gav wekî hêvî û qinyatê têne binavkirin.

Hêvî, hestyarî û pejnkariya ku jiyanê bi mirov dide hezkirin û hishisandin a herî xweşbîn û xweşhal e. Ku hêvî tune be, çêj û wateya jiyanê jî tune ye.Peywir û vatiniya mirov li aliyekî, mafê tu kesî nîn e ku bibe bangdêr û berdevkê reşbîniyê û li der û dora xwe bêhêvîtiyê belav bike. Belê mafê her kesî heye ku ligel merc û derfetên neyinî, her gav bibe qasidê hêvî û xweşbîniyên jiyanê. Lewre, bêhêvîtî û bêmirûziyên mirov ên rojane, wekî delilên xerabî û reşbîniyê; belê hêvîdarî û biryardariyên mirov ên bêdeman û misêwa jî wekî nîşaneyên qencî û xweşbîniyê têne ravekirin û şîrovekirin.

Mirovên hêvîdar ew in ku di gewer û neqebên reş û tarî de xwe li çirûskên xweşbîniyê digirin û tîrêjên hêviyê berdidin ser reşayiya jiyanê. Mirovên biryardar ew in ku di bihur û zixurên teng de xwe li ben û bendên jiyanê digirin û aramiyê diyarî gel û civakê dikin. Mirovên têkoşer û şerker ew in ku li hember merc û neqenciyên dinê çik radiwestin û dibin hefadê mafê jiyanê tevê mirovahiyê diparêzin.

Kî dibe, li ku dibe û çawa dibe bila bibe, kesên hêvîkuj, qesasên giyana mirov û kujerên dahatûya civakê ne. Kesên bêhêvî tu car nikarin arasteyê pirsgirên mirovahiyê bibin û arîşeyên heyî yên dinê çareser bikin. Û ew di tu dem û domanên xerab de nikarin di hawara gel de bên û qidûm û qinyatê bidin takekes û civakê. Yên ku di bin bandor û hikmê vê ferseta neyinî de dimînin jî, dê tu car nikaribin hêviyê bidin der û dora xwe an jî bandoreke erênî li ser giyan û jiyana mirovsehiyê bihêlin. Ji bo wê ye ku, pêdivî û pêwîstî her gav bi mirovên vîndar û bibiryar ên ku xwe wekî têkoşer û suxredarê jiyana mirov û mirovahiyê dibinin, heye. Heke ne wisa be, dê hêvî her tim li bêhêvîtiyê û aramî jî her car li tengezariyê bihesile.

Ji do heta îro, di jiyana civakên dîrokî de, digel hemû erênî û



neyîniyên demê, hêvîdarî û bêhêvîtî her gav wekî du têgînên dijber hem li nik hev û li dij hev û hem jî beramberî hev û di zikê hev de peyde bûne û hebûna xwe domandine. Yên ku bi mebesta hevahengiya jiyanê û aramiya civakê tev digerin, ji bo ku hêviyê bidin gel, bertek û helwestên erênî nîşan didin. Belê yên ku bi niyet û hinceta tevlîhevî û aloziyên tund tevdigerin jî arîşeyên heyî xurtir û kûrtir dikin û qidûmê mirov û civakê dişikînin. Heke rê û li ber van kesan neyê girtin, dê her yek ji wan wekî vîrûs û terêfeke(mîkrobeke) kujende, bikevin nav reh û şaneyên (hucreyên) jiyana civakê û di giyana wê de biçêrin. Ji bo wê jî divê, ji înta kesên reşbîn û bêhêvî, mirovên hestyar û pejnkar bibin afirînerî hestên erênî û hêviyên xweşhal belav bikin.

A rast, ew kesên ku di nava reşbîniyên jiyana xwe de noq bûne, dixwazin bi hestên kesên biryardar, vîndar û hêvîdar bilizîn û hin bi hin wan jî bikişînin nava çirav û lîtava jiyana xwe ya efnikî û genî. Wekî tê zanîn, kesên berjewendperset, ango ew ên ku tenê di xwe de difikirin û tîmî dikevin heyra canê xwe, tu car nikarin bibin binbar û suxredarê fedakariyên civakî û hêviyên xêrxwaz belav bikin. Lewre ew, tenê dikevin timtêla jiyana xwe ya rojane û arasteyî liv û bizavên bêxêr û bêkêr dibin. Ew, dîl û têkçûyiyên jiyanê ne û dixwazin civakê jî radestê kes û hêzên ku serdestî jîn û vîna wan bûne, bikin. Ji bo wê jî, her gav ji xwe re li heval, hevkar û şirîkên bêhavil digerin.

Hêvîdarî û xweşbînî çêkirin, avakirin û firandin e. Çêkirin bi cehd û kedê bi dest dikeve. Ji bo wê jî, hewcetiya wê bi lebat û xebatê heye. Belê bêvêtî û reşbînî, xerakirin, hilweşandin û rûxandin e. Ji bo xerakirinê jî, pêdivî bi tu tiştî nîn e. Lewre xerakirin berîberdan e. Hezandin, helikandin, xirandin, xurifandin, herişandin û herifandin hemû bi bêhêvîtiyê re rû didin. Ji bo wê, divê tu car bêhêvîtî neyê hewandin û hefidandin. Û divê ji bo qet destûr û derefet neyê dayîn ku têkoşerî radestî serdestiyê û hêvîdarî jî derdestî reşbîniyê nebe.

## Ji Adar Jiyan qevdepirtûkek




*Çar pirtûkên Nivîskarê Kurd **Adar Jiyan** ji bin çapê derketin. Pirtûkên bi navê **Raveya Peyvan**, **Ziman û Jiyan**, **Serkeftina Moristanan** û **Şevên Koçber** her yek li ser mijareke cuda hatiye amadekirin. Weşanên Periyê ev 4 pirtûk çap kirine.*

### Raveya Peyvan

Pirtûka **Raveya Peyvan** digel wate û raveya peyvên nûjen, di heman demê de dewlemendiya peyvên zimanê Kurdî pêşkêşî xwendevan dike. Di pirtûkê de gelek peyv û têgînên sosyolojîk, felsefî, olî hene û ew ji aliyê nivîskar ve hatine şirovekirin.

### Ziman û Jiyan

Pirtûka **Ziman û Jiyan** bi her awayî li ser zimanê ku di nav jiyanê de tê bikaranîn e. Ji ber vê jî ev nav lê hatiye kirin. Di vê pirtûkê de gotarên wekî Ziman û hilberî, Ziman û Hişmendî, Çiman û Deng, Ziman û Axaftin, Ziman û Dem, Ziman û Perwerdehî, Ziman û Hiqûq, Ziman û Wêje, Ziman û Azadî û bi gelek sernavên bi vî rengî, têkiliya ziman û jiyanê hatiye girêdan, rista ziman a di nav jiyanê de hatiye pêşkêş kirin.

### Serkeftina Moristanan

Pirtûka **Serkeftina Moristanan** ji fablên Kurdî pêk tê. **Çirçirik û Moristan**, **Bilbilo**, **Dîk û Rovî**, **Şêr û Mişk**, **Şivanê Derewîn** tenê çend nivîs in ji nava pirtûkê ku dê derkevin pêşberî xwendevan. Her wiha gelek nivîsên din ên fablîn jî li benda xwendevan in di nav **Serkeftin Moristana** de.

### Şevên Koçber

Pirtûka din jî bi navê **Şevên Koçber** e ku ji çîrokên Adar Jiyan pêk hatine. **Şevên Koçber** çîrokên koçberiyê ne. Di nav koçberiyê de hestên evîn, êş, azar, kerb, derd û kul, gelek hestên din bi mirovan re pêk tên. Ew hest hatine ketine nava çîrokên Adar Jiyan û ji wir **Şevên Koçber** derketiye holê.

**'Diyarname'**




**Çeprast:**
1. Sînemakarekî Kurd.
2. Welatek di Afrîqayê de ye.
3. Meha yekem ya demsala biharê - Di Farsî de ji **Avbend**ê re tê gotin.
4. Azwerî - Nan jê tê çê kirin - Pereyeke kevn yê Îranê.
5. Hest - Xwedayê Yûnaniyan yê kevn.
6. Bajareke Kurdistana Îranê - Duhî nine.
7. Bajarê Rojhilatê Kurdistanê ku Feqiyê teyran li wir ji dayîk bûye - Belê bi Rûsî- Bi Farsî **ew**.
8. Parek ji zanista Kîmyayê – Rêxistina Fezayê ya li Amerîkayê.
9. Simît(çîmento) bi Farsî.
10. Paytexta welatê Ermenistanê bi Farsî.

**Serjêr:**
1. Erd nine.
2. Dijwateya şêlûbûnê.
3. Di devokeke Kurmancî de ji **wisa** re tê gotin - Werzişek ku li ser cemedê tê kirin.
4. Xwedayek li Başûrê Rojhilata Asyayê – Pirça mirovan pêk tîne - Hejmarek e.
5. Navê pêşîn yê nivîskarekî Kurd - Alavek ku di dema erd kêlandinê de bi Ga tê girêdan.
6. Di xwezayê de rola Şaneşînê heye - Lîstikeke Folklor.
7. Di Farsî de **ev** - Şîrovekirin di Zaravê Soranî de - Aş di Zaravê Hewramî de.
8. Kinceke jinan li Hindistanê - Di Turkî de ji dayîkê re tê gotin.
9. Xwedayê başî û qenciyê di Ola Zerdeştê de.
10. Kesek ku bo cara yekemîn Elekterîk çê kir.




# Bersîva Xaçepirsa hejmara 25



| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | ■ | ■ | F | E (2) | O | D | A | L | ■ | ■ |
| 2 | ■ | ■ | A | B | L | Û | Q | E | ■ | ■ |
| 3 | T | Î | ■ | D | A | R | A | ■ | E | H (3) |
| 4 | E | R | A | ■ | R | E | ■ | Î | D | Ê |
| 5 | H | E | J | Î | ■ | ■ | Ê | M (1) | Î | Ş |
| 6 | A (6) | V | A | R | ■ | ■ | K | A | T | Î |
| 7 | Y | A (4) | R | ■ | A | B (5) | ■ | N | O | N |
| 8 | Î | N | ■ | E | M | Î | R | ■ | R | Î |
| 9 | ■ | ■ | O | T | O | N | O | M | ■ | ■ |
| 10 | ■ | ■ | D (7) | A | L | A | H | O | ■ | ■ |

Peyva Veşartî: M (1) E (2) H (3) A (4) B (5) A (6) D (7)

## Gotinên Navdaran:

**Basa hezkirina ji destçûyî neke, hezkirin ne tiştek e ku ji dest biçe.** (Lang Filû)

**Niha binirxtirîn dema me ye.** (Enagirşun)

**Pejirandina kiryara xerab, destpêka encamdana kiryara baş e.** (Ogostîn)

**Ew cihê desthilat tê holê, qanûn tê de jar û lawaz dibe.** (Napelon)

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Derketin ji Sûriyê ji Rojnamevanê Kurd Faruq Hecî Mistefa hate qedexe kirin

Derketina ji Sûriyê ji Rojnamevanê Kurd Faruq Hecî Mistefa hatiye qedexe kirin. Rojnamevanê Kurd, Kekê Faruq Hecî Mistefa Kurdê Sûriyê ye û di navbera Libnan û Sûriyê de xebata xwe ya rojnamevaniyê dimeşîne. Ew di medyayên Erebî de li ser doza Kurdî bi berfirehî dinivîse.



Rojnamevan Faruq Hecî Mistefa demekê berî niha di sefera xwe ya ji bo Kurdistana Îraqê de, hate binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê. Wî seba rewşa Kurdan li Îranê û siyaset û helwestên PDK Îranê li ser pirsên siyasî û hwd..., nûçe, rapor û hevpeyvîn pêk anîn û di medyayên Erebî de weşandin. Niha hatiye qedexekirina ku ew ji Sûriyê derkeve.

Faruq Hecî Mistefa di rojnameya El Musteqbel de (rojnameya Refîq Herîrî) wekî nûçegihan dixebite û di gelek rojnameyên Erebî de dinivisîne.

Ew rojnamevanê Kurd ji aliyê hêzên Ewlekariya Sûriyê di rewşeke gelek xirab de dijî.

---

# Biryara Îdama ciwanekî Mehabadê bû sedema meşên nerazîbûnê

Biryara îdamê ji bo Ciwanê Kurd, **Mistefa Resûlniya** yek ji wan kesên ku di pêvajoya xwenîşandanên havîna îsal de hatibû girtin, derketiye. Demjimêr 7'ê Êvariya roja sêşemî, 26.10.2005'an de, bi sedan kes ji ciwanên şoreşvan yên bajarê Mehabadê di qada Şoreşê de li hev civiyan û nerazîbûna xwe li hember biryara îdam kirina Mistefa Resûlniya bi hilkirina agir û vegotina dirûşmên wek: **Bijî Partiya Demokrat, Qasimlo, Qasimlo, rêya te dirêjî heye, girtiyên siyasî divêt bihên azad kirin** û her wiha daxwaza serbestberdana wî ciwanê bêgunh nîşan dan.





**Wêneyê Mistefa Resûlniya**

Di doma xwepêşandanê de di navbera hêzên leşkerî û ciwanên şoreşvan yên bajarê Mehabadê de pevçûn çê bûn. Leşkeran bi gazên rondikrêj û teqandina guleyên hewayî êrîş birin ser xwenîşanderan û wan jî bi dar û keviran bersiva êrîşa hêzên hov û dijî gelî yên rejîmê Îslamî ya Îranê dan.

Ew meşa nerazîbûnê heya direng şevê berdewam kir û ji qasê girtî û birîndaran heya niha tu nûçeyek di dest de nine.

Mistefa Resûlniya ku di serhildana havîna îsal li Mehabadê hatibû girtin, bi tawana kuştina Efsereke hêzên Întizamî bi navê **Cenkço** bi îdamê hatiye gunehbar kirin. Mistefa Resûlniya di civîna dadgehê de dabû zanîn ku ew di bin îşkenceya tund û zexteke zaf de neçar hatiye kirin ku îfadê bi vê gunehê bike û ew sûçe mehkûm kir û ne rast da zanîn.

# 'Em hatin ku jiyana xwe rizgar bikin'

Qasê 200 kes ji wan penaber Kurd yên Îranî ku li Kampa Eltaş ya Romadyê li Rojhilatê Bexdayê dijiyan, demekê berî niha ji aliyê girûpên terorîstî yên Îraqê ketibûne ber êrîşê, mixabin 20 kes ji wan jiyana xwe ji dest dane. Ew Penaberên belengaz yên Kurd ji tirsa canê xwe bo sînorê Urdinê revîne, heya xwe bi Buroya Komîsaryaya Bilind ya Penaberan a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bidin nasandin, lê dewleta Urdinê rêya çûna wan penaberan bo wî welatî nade û rayedarên Îraqê jî tu gavek ji bo van penaberan ne avêtine. Li gorî Agahiyên Radyoya Farsî ziman ya "Farda" (sibê), yek ji wan penaberan di hevpeyvîneke bi vê radyoyê re gotiye: "Em ji Îraqê hatin û di navbera sînorê Urdinê û Îraqê de mane, heta em bikarin jiyana xwe rizgar bikin. Lê mixabin kes ji me napirse, ne dewleta Urdinê û ne Rêxistina Penaberan û heta hêzên Urdinê yên ser tixûb êrîş kirin ser me û çend kes jî birîndar bûne û em ji kêmtirîn mafên mirovan bêpar in." Arif Bawecanî, Berpirsiyarê Komîtyeya Piştgîrî ji van penaberane dibêje: "Di van çend rojên çûyî de sînorvanên Urdinê ew penaberan dane ber êrîş û lêdanê ku di encamê de 3 kes ji jinên pêgiran (avis) zarokên xwe ji dast dane û zarok di zikê wan de mirine.





**Jêder: Radyoya Farsî ziman ya "FARDA" (Sibê)**

# Ciwanekî Îranî li Kerecê hat xaç kirin

Hêzên serkutkar yên rêjîma Komara Îslamî gencek Îranî roja 13.10.2005'an bo midehê çend demjimêran li navenda bajarê Kerecê bi xaçê ve girêdan.

Hêzên Îtilaatê destên Ekber Samayat bi xaçekê girêdan, çend dewlik (satil) û mesînên tejî avê bi stûyê wî vekirin. Ewan her wisa pîlikek di devê wî de danîn.

Hêzên rijîmê morfînek zor li wî qurbaniyê bikar biribûn, ji bona li kar xistina berxwedana wî.

Ji bo sivik kirin, şikandin û bêhurmetî kirin bi Ekber, hêzên Îranê navbirî ji saet 10'ê sibê hetanî 2'ê piştînîvro li navenda bajarê Kerecê anîn û birin. Navborî bi tekoşîn û tevgera têkdanê hatibû tawanbar kirin.

Desthilatdarên Îranê, gelek caran ciwanan li ber çavê cîran û nasyaran sivik dikin û wana bi siwarê ker digerînin ji bo çok daînana wana.



Ew şêwe sizadana bi taybet bo wan kesan bi kar tê birin ku sûçên biçûk weke wexwarina elkoholê encam hatibe dan, yan şevê hukmê qedexekirina hatin û çûna derê şikandibin û qedr û hurmeta hêzên çekdar yên rijêmê negirtibin.

**Jêder: "Iran Focus", 14.10.2005**